Bidestveanîna mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçoveya Îranek Demokratîk û Federalî de

Hejmar: 29
15'ê Dec 2005
Buha: 150 Tûmen

agiri

Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

## Kurdistana Îraqê ji bo hilbijartinên 15'ê Desambrê xwe amade dike

Hilbijartinên seranserî yên Îraqê ji bo hilbijartina Parlemana vî welatî, qirar e 15'ê Desmabrê bihê meşandin. Piraniya partî, rêxistinên neteweyî, demokrat û xebatkar yên Kurdistanê bi lîsteyeke hevbeş bi navê **Hevalbendiya Kurdistanê** di vê hilbijartinê de beşdariyê dikin. Hejmara **Lîsta Hevalbendiya Kurdistanê** 730 ye.

# XALA HEVBEŞ DIJBERIYA KURDAN E

## Ciwaneke Kurd li Sine bi awayekî hov bi destên Leşkeran hate kuştin

Roja 04.12.2005'an, hêzên bi nav Întizamî yên "Kelanterî" (Navenda leşkerî) ya 13 di Parka "Stiqlal" (Serxwebûn)ê de, ciwaneke temen 17 salî bi navê **Pûya Îbrahîm Abadî** digirin û dibin Navenda Leşkerî ya 13'ê.

Hêjayî gotinê ye ku hêzên Întizamî, li hember deriyê "Kelanterî"iyê bi awayekî xurt wî didin ber azar û îşkenceyê û navhatî ji hiş diçe û piştre ji bo nexweşxaneya "Tewhîdî" dişînin. Mixabin bi sedema lêketina derbên giran ji aliyê hêzên hov û Kurdkuj yên Komara Îslamî di nexweşxaneyê de jiyana xwe ji dest dide.

### Rayedarên rejîmê digotin ku Pûya xwe kuştiye!!!

Piştî vê cinayeta hovane, hêzên leşkerî yên rejîmê ji ber vê çendê ku ew karê wan nebe sedema pêkhatina xwenîşandanê li Bajarê Sine û wekî bajarê Mehabadê rewşa bajêr aloz nebe, gotin ku wî ciwanî xwe kuştiye, Her wiha malbata wî tê gazî kirin û soz ji wan tê standin ku nabe di vî warî de tu nerazîbûnek bihê xuya kirin û divêt bêdeng bin.

### Dijberî tevî Kurdan

## Xala hevbeş ya Turkiye û Îranê

Dewletên Îran, Turkiye û Sûriye herdem li ser xalekê li hev dikin û dijî disekinin, ew jî **Pirsgirêka Kurd** e. Vê carê jî Menûçehr Mutekî, Wezîrê Derve yê Îranê di seferekê 2 rojî de gihîşte Enqere û bi rayedar û berpirsyarên bilind yê Turkiyê re hevdîtin û gotûbêj kir. Jêderên Dewletî li Turkiyê dan zanîn ku Turkiyê nepejirandî ye ku gaza xwezayî ya Îranê ji niha pitir li axa Turkiyê re derbas bibe. Eva di halekê de ye ku derbasbûna vê gazê ji Turkiyê qazanceke zaf digehîne dewleta Turkiyê. Wisa tê xuya kirin ku Turkiye têbîniyên Amerîkayê li dor Îranê ji vê xêr û bêrê girîngtir dizane.

Ebdula Gul, Wezîrê Derve yê Turkiyê di hevdîtina xwe bi hemkûfê xwe yê Îranî re bi eşkere ji Îranê xwest ku bê merc, alîkariyên hewce bi Ajansa Vejena Etomê ya Navneteweyî dest pê bike. Lê, li gorî rapora ragihandinên Turkiyê, her du Wezîrên Derve yên Îran û Turkiyê li ser hin xalan li hev kirin. **Pirsgirêka PKK'ê, pêşîgirtin ji parvebûna Îraqê û berlêgirtin ji belavbûna ne ewlekarî ji bo herêmê.** Xuya û aşkira ye ku merema wan her 2 welatan ji parvebûna Îraqê û belavbûna ne ewlekariyê li deverê, berbipêşdeçûna pirsgirêka Kurd e ku wan welatên dijî Kurd herdem li ser vê pirsê li hev kiriye.

---

## Ehmedînejad: "Divêt li Ewropayê de cih bi dewleta Îsraîlê re bê dan"

Mehmûd Ehmedînejad, Serok Komarê Îranê di konferanseke çapemeniyê de li welatê Erebistana Seûdî de got: "Divêt welatê Îsraîlê li ser xarîteya Rojhilata Navîn de nemîne û welatên Ewropî cihekê li bal xwe bidin Îsraîlê". Ew gotina Ehmedînejad dûr ji dîplomasiya navneteweyî bû. Gotinên vê carê yên Ehmedînejad jî ji aliyê Konseya Ewlekariya



Rêxistina Neteweyên Yekbûyî û gelek welatên cîhanê bi tundî hat mehkûm û şermezar kirin.

---

## Daxuyaniya Yekîtiya Xwendekarên Demokrat ya Kurdistana Îranê bi hinceta 16'ê Sermawezê, Roja Xwendekar

Di dîroka Îranê de roja 16'ê Sermaweza sala 1332 (1953)'an bi navê **Roja Xwendekar** hatiye linav kirin.

**(R. 2)**

---

## Peymannameya Cîhanî ya Mafên Zarokan
(Beşa 3)



Peymannameya Cîhanî ya Mafên Zarokan peymanek navneteweyî ye ku ji bo berevanî û piştevanî kirin ji mafê zarokan hatiye berhev kirin. Ev peymane piştî 10 salan gotûbêj di navbera welatên endamê...

**(R. 11)**

---

## MAF Û MIROV



Tiştên ku ji bo tevger û jiyana mirov wekî fêhel, helal û rewa têne dîtin, hemû wekî maf têne binavkirin. **(R. 11)**

## Li ser rewşa civaka Kurdî, jin di civaka Kurdî de, asteng û pirsgirêkên jinan û ... Di hevpeyvîneke de tevî birêz Rambod Ltfpûrî, rojnamevan û pispor di warê civaknasiyê de



Di rûpela 6-7'an de

**Evîn Çîçek:**

## "Bindestiya jinê, bindestiya dayîka Kurdistanê ye"

Helbestvan û nivîskara Kurd, Evîn Çîçek di hevpeyvîneke taybet bi Agirî re:

**"Ji bo helbestvanekê/a Kurd tiştê herî girîng xelaskirina çand, netewe û welat e"**

**R. 8-10**



# Daxuyaniya Yekîtiya Xwendekarên Demokrat ya Kurdistana Îranê bi hinceta 16'ê Sermawezê, Roja Xwendekar

Tevgera xwendekarî ya Îranê, evraz û nişîvên zaf şopandine û ji destpêkê heta niha, geşekirin û ber bi lawazî û jarbûnê çûye, hilkişîn û herifînên zaf bi xwe ve dîtine û di vê rêya dirêj û tejî ceribandinê de, çendîn rûpelên zêrîn diyarî xebata azadîxwaziyê di Îranê de kirine.

Yek ji wan rojên dîrokî, roja 16'ê Sermaweza sala 1332 (1953)'an e ku bi navê **Roja Xwendekar** hatiye linav kirin. Di vê rojê de serhildan û xwenîşandanên xwendekarî yên Sermaweza 1953'an bi hêceta dijberî tevî sefera Nîkson ji bo Îranê ku di rastî da ji bo xuyakirina kerb û kîna xwendekarên azadîxwaz dijî desthilata ne qanûnî û serberedayiya kudetayê rêve diçû kete ber êrîşa hêzên neyar yên azadî û zanistê û rijyana xwîna 3 xwendekaran wek xaleke reş di nav çavên sîstema Paşayetiyê li Îranê de ma.

Hemû salê 16'ê Sermawezê vê çendê tîne bîra me ku tevgera xwendekarî, bizaveke radîkal, armancxwaz û girêdayî bi nirx û bihayên miroviye û di vê demê de ku dîktatorî û totalîtarîzm, nezanîperestî û karên şaş, dixwaze balê bi ser hemû alî û hêlên jiyana siyasî, civakî û aborî ya xelkê de bikişîne û tev şeq û tîkên civakê bi direw û xapandin tejî bike, tevgera xwendekarî bi zanebûn û hişyarî û bi bîr û çaveke tûj, pirsgirêkan destnîşan dike û dibe banga tejî hawar û dengê azadîxwazane ya xelkê.

Niha jî em di çaxekê de rêz û hurmetê ji Roja Xwendekar digirin ku rejîmeke pavanxwaz, kevneperest û serdemên navîn û sîstemeke dîktator û faşîstî bi ser Îranê de zal e û di vê dawiyê de jî û di şanoya bi nav hilbijartinê de, cinayetkartirîn baskê rejîmê, hêza birêvebirinê bidestve girt û di van çend heyvên hatine ser karê xwe de, rûçikê rastîn yê rejîma Komara Îslamî ku mijûl bû di bin tem û mija bi nav reformxwaziyê de bihê veşartin, ji cîhanê re derxist holê û heta vê dawiyê jî ji bo vê çendê ku bide nîşandan ku çiqas tevî zanist û fêrbûnê û bi ramana nû re dijmin û nateba ye, yek ji belavkerên tarîtî û nezaniyê wek Serokê zanîngeha Tehranê diyarî kir.

Rejîma Komara Îslamî dixwaze xwe yekdest bike ji bo tejîkirina wan valahiyên ku ketiye tê de û ji bo anîna kopalbidest û "Besîcî" û "Pasdaran" bo ser rê û şeqaman, dixwaze paşdekişyanê bi xebata demokratîk û azadîxwazane ya xelkê bike, lewra di vê qonaxa dîrokî de, erk û wezîfeya ser milê xwendekaran û tevgera xwendekarî ye ku wek tex û qata pêşeng û pêşberên civakê, li hember hêzên tarîtiyê de serhildanê bikin û hevaheng tevî çîn û texên din yên civakê de xebata xwe ji bo gihîştin bi azadî û dadperweriyê bidomînin.

Li ser rêya xebata xwendekaran û tevgera xwendekarî gelek asteng û kosp hene û her wisan ku derbasbûyiya vê tevgerê û ceribînên wê der dixin holê, yek ji wan astengan, rêxistinên destçêkirî û girêdayî hikûmetê ne ku rejîm bo ji rêderxistina tekoşîna xwendekaran û dûrxistina wan ji rê û rêbaza rastîn pêk anîne. Rêxistinên destçêkirî wek "Deftera Tehkîma Wehdet"ê, Civatên Îslamî û Komeleya Îslamî ya Xwendekaran û hwd ..., ew rêxistinane ji mêj dem e dixwazin xwe wek nûnerê tevgera xwendekarî bidin nîşan dan û di dema hestyar de asta daxwaz û xwestekên xwendekaran bînin xwarê û pirsgirêkên sereke yên welatê pirneteweyî yê Îranê ji bîr bikin û bixin dûr. Divêt xwendekar bi giştî û nemaze xwendekarên neteweyên bindest bi xwe rêxistinê û pêkanîna hevpeywendî û hevdengiya navbera xwe, rêyê nedin ku ev cure rêxistinên destçêkirî bi navê wan ve, xebata xwendekarî rastî sergêjiyê bikin.

Rejîma Komara Îslamî di havîna îsal de, rûdank û rûyîna (maske) direwîn avêt û mirovkujên xwe yên nepenî derxistin û yekem cihê ku kerb û kîna xwe jê rêt, Kurdistan çepera berxwedanî û azadiyê bû û gelê Kurd jî wek her demekê nîşan da ku pêşeng û alahilgirê xebata azadîxwazane ye û bi xebata sivîl û îroyîn ya xwe dê li hember êrîş û çewisandinên rejîmê de bimeşin. Hêşta xwîna şehîdên serhildana berfireh ya havîna îsal (1384/2005)'an hişik nebûye ku rejîma cinayetkar û hov ya Komara Îslamî bi kuştina ciwaneke Mehabadî bi navê Şêrko Emînî, selimand eva ku li cem wê bênirx e, mafên mirovan û azadiyên mirovan in.

Xwendekarên azadîxwaz yên Kurd ku hemû demekê li hember zulm û zordestiya desthilatê de xwedî helwest bûne û xuya kirin e ku girêdayî bi hêvî û daxwazên neteweyîne û li hember van cinayetên rejîmê bêdeng nabin û rê nadin xwîna şehîdên rêya rizgarî û serbestiya Kurdistanê û xwîna şehîdên serhildana havîna îsal û nemaze xwîna Şêrko Emînî avêde biçe.

YXDK Îranê, tevî rêzgirtin ji bîranîna 16'ê Sermawezê û tevî xuyakirina rêz û serbilindiyê ji bo şehîdên rêya azadî û bexteweriya mirovan, daxwazê ji hemû xwendekaran û ji azadîxwazan û xebatkarên Îranê dike ku li hember cinayetên rejîmê li Kurdistanê û Xozistanê û cihên din yên Îranê bêdeng nebin û bi taybet daxwazê ji xwendekarên azadîxwaz yên neteweyên Îranê dike ku erkê dîrokî yê xwe di rêya bidestveanîna hêviyên neteweyên xwe bicî bînin.

YXDK Îranê, malbatên serbilind yên şehîdan û nemaze şehîdên serhildana vê dawiyê ya Kurdistanê piştrast dike ku hetanî bidestve hatina armanc û hêviyên wan şehîdan ji xebat û tekoşîna azadîxwazane nasekine.

**Hêja û pîroz be bîranîna şehîdên rêya azadiyê**
**Bi tên û gurtir be xebata xwendekarên azadîxwaz**
**Bihiloşe desthilata kevneperest û dîktatorî**

**Yekîtiya Xwendekarên Demokrat ya Kurdistana Îranê**
**15'ê Sermaweza 1384**
**24'ê Desambra 2005**

## Malpera YXDK Îranê vebû



Yekîtiya Xwendekarên Demokrat ya Kurdistana Îranê Malpereke taybet bi xwe vekir. Malper bi 2 zimanên Kurdî û Farsî weşanê dike.
Navnîşanê malperê:
**http://www.yxd-kurdistan.com/**
Navnîşan ji bo têkilîkirin bi YXDK Îranê re:
**info@yxd-kurdistan.com**
**yxdkiran@googlemail.com**

# Demokrasî, biha û piratîka wê

**(Beşa 18)**

**Kurmanc HAKKÎ**
**kurmanchakki@yahoo.com**

**Teoriya çend rehend ya Bêytz**

Me di hejmarên berê de got ku, di prosêdoralîzma aloz de welatî wek takekesên yeksan û otonom tê dîtin, ku xwediyê maf û cihê kartêkirin li ser biryarên siyasî hene, ger ew wê yekê hewce bibînin. Di vê hejmarê da em dê doma pirsê bixin ber bas:

Bêytz ramanên ku xwediyê pênase û çarçoveyan in, li gor sîstemên hilbijartinê, destnîşankirina agêndaya ramyarî û kampanyayên partiyan li dema hilbijartinan dide ber lêkolînê. Bi raya Bêytz teoriya wî bingehên tu navend û saziyan nadanê, belkî ew dixwaze ew aliyên nedadwerane yên hilbijartinên demokratîk nîşan bide, bi vê hêviyê ku saziyên siyasî xwe ji wana biparêzin. Yek ji wan babetên giring ku bi hizra Bêytz divêt saziyên siyasî xwe jê biparêzin; pêşdebirina newekheviya ku bi sebebê ji hev veqetiyana civakê û cudahiya civakî pêk hatiye. Bi vî awayî nebûna mafê dengdanê bo jinan, wekheviya siyasî bi awayekî radîkal dixe bin pirsyarê. Bi dîtina Bêytz divêt wekhevî û dadperweriya siyasî berî prêfirênsa siyasî bê danîn. Her wisa Bêytz ji bo dadperwerane ya demokrasiyê, hin pêşniyarên din jî dike. Li gor wî piroseyên demokratîk yên biryardana kollektîv, cihê baweriyê ne. Ev ji ber wê ye ku sîstema demokratîk li ser bingeha nasîna mafê wekhev ji bo hemû welatiyan hatiye damezrandin. Heke ew hizra han ji bo welatiyan hatibe bi cî anîn, hevwelatiyan motîva (engîza) wê yekê hene ku di gotûbêjên civakî û hilbijartina prêfêrênsa xwe ya siyasî de li gor nirx û bihayên xwe û bi dîtina bihayên aliyên din de jî beşdar bin.

Li gor dîtina Bêytz, demokrasî berî her tiştî diyaloga eşkere û hizra kollektîv ya welatiyan li ser pirsgirêkên pêwendîdar e. Ramanên prosêdoralîzm ya Bêytz di gelek aliyan de wek hizra delebratîv ya demokrasiyê ne. Di demokrasiya delebratîv de takeyên welatî hev bi endamên wekhev û yeksan nas dikin. Ewa jî hevberê rêza wekhev ya welatiyan li aliyê Bêytz de ye.

Bêytz giraniyê dide ser beşdariya delîbratîv di diyalogên demokratîk de. Lê hevdengî li biryarên kolektîv tenê ji rêya beşdarî kirin li guftûgoyan de bi cî nayên û hewce bi dengdanê jî heye.



Bêytz her wisa dixwaze bersîva pirsa hilbijartinên civakî jî bide.

Li gorî Bêytz, altirnatîvên cur bi cur yên civakî dikaribin dadwerane bin. Ya giring eva ye ku biryar bi awayekî sîstematîk û dadwerane bihên dan. Bi baweriya wî navend û binkeyên biryardana civakî berî vê ku li ser bingeha biryardana wan bên nirxandin, divêt li ser dadweriya siyasî bên nirxandin. Bi gotineke din berî ku encama biryarekê bê nirxandin, Bêytz dixwaze bizanibe ew biryara siyasî çend dadperwerane û edaletxwazane ye. Dadweriya biryardana siyasî tenê li wê de nayê berçav kirin ku bizanibin çawa prêfirênsa takekê hatiye pêk anîn, belkî diviya di pirosesa biryardanê de ew yek jî bê berçav girtin, biryara han çawa dikaribe bibe sebeba guftûgoyên vekirî di civakê de.

Yek ji pirsgirêkên biryarên kollektîv bi raya Bêytz hilbijardeya (prêfirênsa) bê amanc ya piraniya civakê ye. Giring eva ye ku di destpêka guftûgoyên ser biryarên kollektîv de pirsa dadperweriya civakî bi awayekê bê damezrandin ku dadweriya siyasî di guftûgoyan li destpêka hilbijartina acêndeyên ber basê ji bo hilbijartinê û hatanî bo nimûne dengdanan jî bê cî be cî kirin. Berevajî hemû ew basên ku hatanî niha hatine kirin, Bêytz bi awayekî fermî demokrasiyê şirove nake, belkî ew dixwaza şiroveya wan navend û saziyan bike ku dadweriya siyasî di demokrasiyê de lawaz dikin. Di berê de me bas kir ku demokrasî şêwazek ji saziya civakî ye. Di basa hilbijartina civakî de demokrasî li ser bingeha prêfirênsa takekesan hat şirove kirin. Di demokrasiya Mînîmal de li gor teoriya Dahl demokrasî wek saziyek sîstematîk hatiye şirove kirin.

Bi baweriya gelek lêkolînvan û siyasetvanan, demokrasî bi awayeke sade li ser bingeha dabeşkirina desthilatê li navbera saziyên cur bi cur tê pênase kirin. Wek encameke basên me yên hetanî vê gavê, gelo em dikaribin bêjin ku demokrasî berî her tiştekê dabeşkirina desthilatê li ser saziyên cur bi cur e û tu pêwendiyek bi dadweriyê ve tune ye?

Têgihîştina demokrasiyê wek desthilata gel bi wateya yeksaniya siyasî ya welatiyan û otonomiya wan tê ku ji bo cî bi cî bûna wan ramanane hewce bi bûna dam û dezgehên cur bi cur heye. Destpêka demokrasiyê dikaribe bi damezrandina saziyên cuda cuda û enistîtuyên pêwendîdar bê bingeh danîn. Ji bilî hebûna sazî û enistîtuyên demokrasiyê, hewce bi curek rabûn û rûniştinek taybetî jî heye. Demokrasiyên rûyekî bê beşdarî û mafê yeksan yê welatiyan nikaribe kar bike. Bê ku welatî bikaribin bi awayekî berfireh û azad hizr û ramanên xwe binîn rojevê an beşdariyê di prosesên siyasî de bikin, bas kirin li demokrasiyê tişteke dûr ji rastiyan e. Hebûna enistîtu û saziyên demokratîk hewcehî bi curek exlaqa demokratîk jî heye ku tê de xwedî desthilat ku bi dengê welatiyan hatine hilbijartin, li hember hev berpirsiyar in û xwedî biryar û sozdar bin di cî bi cî kirina bingehên demokratîk de. Bo nimûne li demokrasiya mînîmal de aliyê kêm elîtên biryarder di rikeberiyek demokartîk da tên hilbijartin û ewana li gor rolên ku diyarî hatiye kirin, kar dikin. Di demokrasiya lîberal da ji bilî hilbijartina elîta rêveber, mafê welatiyên asayî jî hatiye parastin.

Demokrasî bê bûna norm û yasayan bêwate ye. Dema bas ji demokrasiyê tê kirin, bo me gelek giring e ku ew demokrasiyê çawa hin nirx û biha ji bo civakê pêk anîne û bi awayekî yasayî şirove kirine û di piratîkê da ketine rojevê. Şiroveya Bêytz û her wekî şiroveyên gelek yên din jî li ser mesela dadperweriya demokratîk em dikaribin bi nirx û bihayeke û demokratîk bidin hesab kirin. Bingeha wê nirxa Bêytz ewa ye ku di biryardanên siyasî de welatî wek takekesên wekhev û xwedî maf xwediyê otonomiya kesayetiya xwe ne. Ewa jî dadweriya sazî û enistîtuyên biryarder dixwaze. Di ramanên demokratîk de tenê sozdariya êlîtên rêberiyê nikaribe dadweriya demokratîk bi cî bîne, belkî welatî jî divêt bi awayekî nerm û bê tund û tûjî zanyariyên hewce ji bo biryardanê bi dest bînin.

Di hejmara tê da em dê beşdariya siyasî di sîstemên demokratîk de şirove bikin.

# Nameyek ku her ji niha ve di dîrokê de heliya

**Rojhilat KÊLEŞÎN**



بسمه تعالی

استاندار محترم استان آذربایجان غربی

جناب آقای دکتر رحیم قربانی

سلام علیکم



Neteweya Kurd di hemû parên Kurdistanê de li mêj dem e ji bo bidestveanîna armancên xwe ku ji aliyê hikûmetên zordar ve hatiye zevtkirin, xebat û tekoşînê dimeşîne. Neteweya Kurd li Kurdistana Îranê jî pitir ji nîviya sedsalekê ye ku ji bo misogerkirina armancên xwe yên pîroz - neteweyî û mirovî- xebatê dike û di vê rêya pir evraz de bi bextkirina hezaran şehîd û ji destdana jêhatîtirîn û lehengtirîn rêberan û sedan girtiyên siyasî û şewitandin û wêranbûna dehan bajar û gundan û dûrxistian hezar jin û zarok û hwd... wek em dibînin, ev xebate niha jî her didome û em piştrast in ku heta bidestvehatina armanc û mafên binpêkirî yên gelê Kurd dê her bidome.

Dana van hemû nirx û bihayane ji bo vê çendê ye ku gelê me rihet û asûde bijî û bi mafên xwe yên neteweyî û mirovî ên destpêkî jî şad be. Lê sed mixabin niha em dibînin ku hin kes ji bo vê çendê ku cihê wan nekeve tirsê û bi armancên xwe yên qirêj û mirar bigihîjin, ji tu karekê yan îxanetekê xwe naparêzin û heta îxanetkirin bi gel û welatê xwe jî ji xwe re bi rewa û heq dizanin.

Piştî hilbijartina Ehmedînejad ji bo Serok Komariya Îranê û avakirina kabîneya nû, piraniya Parêzgar jî hatin guhertin. Paş diyarîkirina Rehîm Qurbanî wek Parêzgarê Azerbaycana Rojava, rûniştvanên herêma Sîlvana li Urmiyê daxwaz ji nûnerên Kurd li Parlemana Îslamî ya Îranê kirin ku Bexşdarê Sîlvana keseke Kurd û xwecih be. Şêwrên devera Sîlvana bi bihîstina vê çendê ketine hereket û livînê, ji bo vê ku rê nedin Bexşdareke Kurd bo vê herêmê bihê diyarî kirin! Wan nameyek ji Parêzgarê nû yê Pasdar re şand û gelek ji wan Şêwran ew name îmza kiribûn û tê de nivîsandibûn:

*"Herêma Sîlvana yek ji wan deverên hestber yê Parêzgehê ye, bi sedema vê çendê ku tevî du welatên Turkiye û Îraqê hevtixûb e û gelek zû rastî hereketên partî û girûpên dijberî rejîmê dibe û herêm rastî nakokî û hevrikî û ... dibe. Bona vê çendê ku xelk pitir ji Komara Îslamî ya Îranê nêzîk bibin, em bawerin karê baş eva ye ku Ejderzade (Serokê berê yê Komîteya Îmdada gundê Rajanê) ku keseke jêhatî û alîgirê Komara Îslamî ya Îrnaê ye û berê endamê hêza Sîxorê ya "Besîc"ê bûye bi berpirsiyariya Bexşdariya Sîlvana bihê diyarîkirin."*

Name ji 2 rûpelan pêk tê. Di rûpela yekemîn de tenê basa hilbijartina Ejderzade û pesn û mehta navhatî hatiye nivîsandin û piştî muhrkirina vê nameyê ji aliyê Şêwrên nêzîk 40 gundan ku ji piraniya wan re tenê rûpela yekemîn ya vê nameyê hatiye nîşan dan – em dikarin bibêjin hinek ji wan hatine xapandin û kum danîne serê hinek ji şêwrên gundan -. Rûpela duyemîn ku basa çêbûna hevrikî û ... di nav xelkê û nifûz û hatina rêxistin û partiyên neyar yên rejîmê û ... tê de hatiye nivîsandin bi namê ve dizeliqînin û radestî Parêzgar tê kirin.

Em hemû dizanin ku bi guherîna berpirsiyareke Turk yan Fars ji bo Kurdan, derdê neteweya me derman nahê kirin û gelê me ji bêparî û cudahîdanan û hwd... rizgar nabe, lê bêguman heya berpirsiyar ji xelkê herêmê û xwecih be û tevî xelkê hemû kul, elem û kêmasiyên heyîn kişandibe, dê baştir derdê xelkê bizane û dikare heta vê qasê ku di dest de heye xizmetê bi gelê xwe bike. Bo nimûne: Sala çûyî bo cara yekemîn Serokê Perwerde û Hînkirina Sîlvana keseke Kurd bû û em dikarin bibêjin ku rewşa xwendekaran ji hemû salekê çêtir bûye û ew kesên ku xwendina zanîngehê kuta kirin ji hemû salên berê zûtir kar di herêmê de peyda kirin û di xwendingehan de wekî fêrkar û dersbêj hatin wergirtin.

Di dawiyê de em dikarin bêjin ku hilbijartina Bexşdareke Kurd û xwecih ne tenê nabe sedema hevrikî û hwd...li deverê de, belkî gelek bi qazancê xelkê xilas dibe û tenê cihê tirsê dibe ji bo wan kesên ku xwe bi nûnerê xelkê dizanin û di rastî de nûnerên rastîn yên xelkê ninin û berjewendiya xwe di îxanetkirin bi gelê xwe de dibînin.

## Wezîrên Karê Derve yên Yekîtiya Ewropayê di daxuyaniyekê de nigeraniya xwe ji rewşa nebaş ya mafên mirovan li Îranê dan xuyakirin

Wezîrên Karê Derve yên Yekîtiya Ewropayê di daxuyaniyekê de ku roja duşemî 13.12.2005'an li Birûkselê pesend kirin, nigeraniya xwe ji rewşa nebaş ya mafên mirovan li Îranê dan zanîn. Di daxuyaniyê de hatiye ku parastina mafên mirovan dê ji bo têkiliyên Îran û Ewropayê gelek bingehîn û girîng be.

Di daxuyaniya Wezîrên Karê Derve yên YE'ê de her wiha hatiye ku rewşa mafên mirovan li Îranê ji berê xerabtir bûye û



Komara Îslmaî ji guherîna qanûnan û nemaze guherîna wan yasayên ku mafên mirovan binpê dike, xwe parastiye. Ev daxuyaniye piştî nirxandina YE'ê der barê hinek ji welatan wekî Çîn, Rûsiya û Îranê hatiye pejirandin. Daxuyanî dide zanîn: YE'ê bi merema çêtirbûna rewşa mafên mirovan li Îranê bi rêyên din wekî Rêxistina Neteweyên Yekbûyî dê bixebite.

**Jêder: Radyo "Farda"**

# Civînên Kongreya Neteweyên Îrana Federal

Roja 26'ê Novembra 2005'an, Şanda Rêvebir ya Kongreya Neteweyên Îrana Federal bo şîrovekirina pirsên siyasî û neteweyî, li bajarê Londonê civiya.

Di destpêkê de heyetê rewşa aborî ya kongreyê nirxand û piştre basa propaganda û belavkirina armancên Kongreyê û girîngiya rengvedana çalakiyên wê di nava endam û xelkê de bi giştî bi mifah standin ji teknolojiya pêşverû ya têkiliyên giştî ji wana înternêt, radyo û televîzyonê kir.

Peywendî tevî organên navneteweyî li gor bernameya demdirêj û kurtdem yên Kongreyê ji bo hişyarkirina bîr û raya giştî ya cîhanê li zulm û çewisandina sîstematîk ya neteweyî û çandî a zal li Îranê de, mijareke girîng ya din a vê civînê bû.

Di dawiyê de pirsa gotûbêj tevî aliyên siyasî yên Îranî yên alîgirê Federalîzmê re kete ber bas û nîqaşê û ev berpirsiyarî li stûyê endamên Kongreyê hate xistin.

***Şanda Rêvebir ya Kongreya Neteweyên Îrana Federal***

**Endamên Kongreyê:**

**Eniya Hevgirtî ya Belûçistana Îranê**
**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**
**Partiya Xelkê Belûçistanê**
**Partiya Hevpeywendiya Demokratîk ya Gelê Ereb yê Ehwazê**
**Rêxistina Tevgera Neteweya Belûçistana Îranê**
**Rêxistina Şoreşvanên Zehmetkêş ya Kurdistana Îranê – Komele**
**Rêxistina Berevankar ya Mafên Neteweyî ya Gelê Turkman**
**Navenda Çandî ya Azerbaycanê**

# Hevdîtin û civînên Komîteya Têkiliyên Navneteweyî ya Kongreya Neteweyên Îrana Federal bi Berpirsiyarên Yekîtiya Ewropayê re li Birûkselê

Komîteya Têkiliyên Navneteweyî ya Kongreya Neteweyên Îrana Federal di rojên 28-30'ê Novambra 2005'an de, çend hevdîtinên cuda bi berpirsiyarên Yekîtiya Ewropayê re li Konse, Komîsyon û Parlamentoya Ewropayê û her wiha çend rêxistinên navdewletî li Birûksel (Beljîka)ê pêk anîn.

Di van rûniştin û civînan de pirsên jêr ketin ber bas û gotûbêjê:

- Rewşa siyasî û civakî ya neteweyên çewisnadî li Îranê û binpêkirina sîstematîk ya mafên mirovan li herêm û cihên akincîbûna wan
- Domandina siyaseta cudahîdanan û serkuta rejîma Komara Îslamî dijî neteweyên Îranê û zêdebûna û xurtbûna van siyasetane piştî bi ser kar hatina Mehmûd Ehmedînejad
- Avakirina Kongreya Neteweyên Îrana Federal û armancên wê
- Girîngiya çareserkirina siyasî û demokratîk ya pirsa neteweyên bindest di rêya demokratîzekirina Îranê û misogerkirin û cîgirkirina tenahî û ewlehiyê di herêmê de
- Siyaseta derve ya Komara Îslamî û bernameyên Etomî yên rejîmê
- Rewşa nebaş û dijwar ya girtiyên siyasî û hewcehiya gav avêtina bilez ji bo azadkirina wan
- Rewşa nebaş ya Penaberên Siyasî li welatên Turkiyê, Îraqê, Pakistanê û Efxanistanê
- Siyaseta Yekîtiya Ewropayê li hember Komara Îslamî ya Îranê de

# 16'ê Sermawezê, Roja Xwendekar hate pîroz kirin

Sibêdeya roja pêncşemî, 16'ê Sermaweza 1384'ê Rojî (07.12.2005), rê û resmek ji aliyê YXDKÎ bi hilkevta Roja Xwendekar (16'ê Sermawez) ve pêk hat.

Rê û resm bi sirûda neteweyî a **EY Reqîb** hate dest pê kirin û paşan deqeyek bêdengî ji bo yad û rêzgirtin ji canê paqij yê xwendekarên şehîd û şehîdên rêya rizgariya Kurd û Kurdistan û demokrasiyê hate ragihandin. Piştre birêz Kerîm Perwîzî, Sekreterê Yekîtiya Xwendekarên Demokrat a Kurdistana Îranê bixêrhatina mêwanan kir û li ser girîngiya vê rê û resmê ji bo beşdaran axivî. Paşan hevalê xebatkar kekê Mistefa Hicrî, Sekreterê Giştî yê PDK Îranê her bi vê hincetê (Roja Xwendekar), baseke binirx pêşkêş kir û Roja Xwendekar di bizava neteweyî, kulturî û siyasî de bilind nirxand û avabûna YXDKÎ bi gavek mezin û hewce di vê rewş û zirûfê de hesiband û herweha qala jî bi Roja Xwendekar û bizava niha ya xwendekaran di Îran û Kurdistanê de



kir.

Paşan çend babetên dewlemend ji aliyê hin hevalên beşdar di rê û resmê de hatin pêşkêş kirin.

- **Gotara birêz Cemîl Kulahî bi navê bizava xwendekarî li Îranê û serhildan û qonaxên wê û astengên ser rêya wê**

- **Gotara birêz Şaho Ferazmend li ser bizava xwendekarî a Kurd, gelo tiştek bi vî navî hebûye? Xalên lawaz û bihêz yên çalakiyên xwendekarên Kurd**

- **Gotara birêz Erfan Rehnimûn li ser pêwîstiya avabûna YXDKÎ, armanc û meremên wê ji bo pirsên siyasî û civakî**
- **Pêşkeş kirina daxuyaniya YXDK Îranê bi boneya Roja Xwendekar ji aliyê xatûna Hêro Haşimî**

**-Çend gotin ji aliyê helbestvan û rewşenbîra Kurd birêz Fatme Husên Penahî li ser erk û wezîfeyên xwendekarên Kurd di rewşa îro de**

Her di çarçoveya vê rê û resmê de, seet 2'ê piştînîvroya vê rojê civîneke pirs û bersivan ji aliyê birêz **Nasir Salihî Esl** (li ser zirûfa niha ya bizava xwendekarên Kurd) û Kekê **Hejar Rehîmî** (li ser rol û cihê xwendekarên Kurd û aliyên lawaz û bihêz yên wê di bizava seranserî a xwendekaran de û cudahiya di navbera xwendekarên Kurd û yên deverên din) hate li darxistin û semînar bi ronkirin û pirên beşdaran dewlemendtir bû û seet 4'ê êvarî bi dawî hat.

**Rojnamevan Rambod Lotfpûrî:**

# “ME SÎSTEMA DEMOKRATÎK HEYE, LÊ KULTURA ME YA DEMOKRATÎK TUNE”

**Li ser pênaseya civakê, rewşa civaka Kurdî ji aliyên cur bi cur ve, jin di civaka Kurdî de û pirsgirêk û astengên jiyana jinan li civaka Kurdî û … armanca hevpeyvînekê bû ku me bi birêz *Rambod Lutfpûrî*, Rojnamevan û pispor di warê civaknasiyê de pêk anî.**

**Hevpeyvîn: Meryem Hacîpûr**



**Tu civakê çawa pênase dikî û raya te li ser civaka Kurdî çiye?**

Wekî Gîdênz dibêje, civak sîstemek ji pêwendiyên hember e ku hin takên xwedî kultureke hevbeş bi hev re peywend û girê dide û di rastî de jî hebûna kulturên hevbeş civakê ji xelkê cuda dike. Civaka Kurdî jî her bi vî terzî di vê pênaseyê de cih digre, anku civaka Kurdî jî pêk hatiye ji hin takên xwedî kultura hevbeş ku sîstemeke taybetî a pêwendiyan di navbera wan de heye û xasmaniyên kultur û sîstema pêwendiyên wan ji civakên derdora xwe cuda dike.

**Bi civaka Kurdî re aloziyek tê xuya kirin, wekî wê ku em bibêjin pêkhateyek ji edet û modernîtê ye. Hûn sedema vê aloziyê di çi de dibînin?**

Belê rast e, civaka me civakek aloz e, sedemên wê jî vedigere ser vê rewş û zirûfa ku civaka me tê de ye. Civaka Kurdî di qonaxa borîn ji edet û toreyê ve ji bo modernîtê ye. Qonaxa derbasbûnê jî alozî, tevlîhevî û pirsgirêkan bi xwe re tîne. Pirsgirêk li wê de ye ku nehevahengî di navbera modernîzebûn û modernîtebûnê de heye. Guherîna eqliyeta amûrî (Modernîzasyon) zor bilez e. Di halekê de guherîna eqliyeta kulturî (Modernîte) zor hêdî û bi sebra xwe ye.

Civaka me heya radeyeke zaf ji alav û amûrên nûjen mifahê distîne, bo mînak Înternêt, Setelayt, otombêlên nû û nemaze sîstema siyasî û perwerdehiya nûjen. Lê ya girîng eva ye ku ew bîr û ramana ku bi wan amûrane ve kar dike, xwediyê kultura edetî û kevneşopî ye. Sîstema siyasî û perwerdehî ya nûjen û Rojavayî ye, lê rayedar û karbidestên siyasî û perwerdehiyê xwediyê vê hizra kevneşop û Rojhilatî ne, bi giştî sîstema demokratîk heye, lê kultura demokratîk nine. Înternêt û Setelaytê deriyek nû bi ser mirov de vekirine û mirov dibin nav cîhaneke nûjen û pêşverû. Lê dema ku te Televîzyon û Komputera xwe temirand, dubare rastî wê cîhana kevn û kevneşop dibî, eva pirsgirêkan diafirîne, evye natebahî û paradokse jî takên civaka Kurdî bi kirîza fikrî û paradoks di kesatiyê de dike. Bo nimûne gava ku keçek di malbata xwe de mêzeyî TV'yê dike, dibîne ku bav û birayên wê çawa mêzeyî jin û lîstikvanên sînemayî û hunermend û stranbêjan dikin û bi bejn û xemla wan û dengê wan de dibêjin, yan jî qala jêhatî û egîdiya Dr. Kondalîza Rays, Wezîra Derve ya Amerîkayê dikin, lê nahêlin ku keça wan bibe bi ekter yan hunermend û di civîn, girûp û rêxistineke siyasî û civakî de pişikdariyê bike, heta nahêlin bi hez û xwasta xwe jî bizewicin. Eva mînakek ji newekheviya di navbera Modernîzasyon û Modernîtê de ye ku bûye sedema bingehîn ya aloziya di civaka me de. Sedema vê nehevahengiyê jî bi giştî vedigere ser natebahiya di navbera bingehên kultura me ku hîm û bingehên olî, kevneşop û eşîrî hene, lê bingehên kultura nûjen ku jêrxanek zanistî û eqlanî hene. Guherîna wan jêrxanane jî pir dijwar û demek zaf dixwaze.

**Cenabê te mînaka vê nehevahengiyê li ser keçekê anî, min jî pê xweş e biçim nava baseke din û pirseke din ji te bikim, tu rewşa jinan di vê qonaxa derbasbûnê de çawa dinirxînin, di halekê de ku em dizanin jin mezintirîn goriyên edet û toreyan di civaka me de ne?**

Min jî guman tê de nine ku jin mezintirîn goriyên kevneşopiyan in. Ev tore û edetên mêr serdestiyê ku per û baskên xwe bi ser hemû aliyên civaka me de kişandine, lê ji bo daketin bi vê basê hewce ye ku bi kurtî qala çawaniya serhildana mêr serdestiyê bikim, yanî her ew sîstema ku jin êxsîr û bendewar kirine û wiha kir ku jin çi li qonaxa kevneşopiyê û çi jî di qonaxa derbasbûnê de tûşî mezintirîn pirsgirêk û dozan bibin.

Vekolînên Antropolojî (mirovnasî) û kevnarzaniyê'' dane kifş û aşkira kirin ku civaka mirovahiyê serdemekê jin serdest yan dayîk serdestî ceribandiye ku mirovan ji hin torên berbilav yên xizmayetiyê de bi hev re têkilî hebûne û jin jî di aboriya wî serdemî de ku li ser esas û bingeha nêçîr û ... bûye, xwedî roleke sereke bûne û her bi wê hincetê hemû aliyên jiyana civakê li bin zêrevanî û li destê wan de bûye, lê hevdem tevî guherîna sîstema aborî ji bo şivanî, çandinî û karîn û şiyana pitir a cendekê mêran ji bo karkirinê di vê sîstemê de hêdî hêdî jin hatin dûrxistin û mêran desthilat bi destve girtin. Eva jî heman têkçûna dîrokî a jinan e ku Îngêls qala wê dike. Di encama vê guherînê de diyardeya xwedanbûnê hate holê, yanî mêran cehd û tekoşîn kirin heya ku bibin xwedî saman û heyiyên civakê û ji bo vê meremê jî pêwîstî bi hin amûrên wekî hêza kar û sîstemekê ji bo garantî û dabînkirina serwerî û xwedîtiya xwe hebû, hêza kar a wan pêkhatibû ji kole (xulam) û jin û zarokên wan û sîstem jî heman sîstema mêr serdest bû ku hemû bingehên civakê wekî malbat, siyaset, aborî û ... bi vî terz û metodê ava kirin. Bo mînak bingeha malbatê, berê ez hez dikim vê çendê bibêjim ku ez ne dijî vê bingehê me û niha jî bi yek ji kolekeyên sereke yê hemû civakekê dizanim. Lê di rastî de bintara malbatê berhema mêr serdetiyê bû û bi merema bêdengkirina jinan derkete holê. Malbat ji bo bindestkirina jinan ava bû, peyva malbatê (Family) ji peyva Latînî ya (Famulus) ve hatiye wergirtin, di rastî de bi wateya xizmetkar e. Anku mêran malbat ji aliyekê bo fermandariya xwe pêk anîn ku tê de jin û zarok rolê xizmetkarê mêran dilîzin ji bo cî bi cî kirina erkên aborî, civakî û derûnî. Diyare di vê sîstemê de zarokên nêr di malbatê de cihwareke baştir û jêhatîtir hebûn, ji ber wê ku him hêzeka karî a bibandortir bûn û him jî paşan dibûne mîratgirê heyîna malî û desthilata bavê xwe.

Bi vî awayî sîstema mêr serdestiyê heta ku dihat bihêztir dibû û zêdetir civak, bingeh û peywendiyên wê dixistin bin desthilata xwe. Lewre wisan lê hat ku du biyavên cuda, **taybetî** û **giştî** ji bo pişikdariya takekesan di kar û barên civakê de hatine pênase kirin, biyav û aliyê taybetî ku biyava jinan bû

û taybet bi kar û barên nav malê û malbatê bû. **Biyava giştî** jî ku biyava mêran û taybet bi kar û barên derveyî malê wate civakê bû ku hemû aliyên aborî, civakî û siyasî li xwe de cih didan. Di serdemê rewşengeriyê de komek ji bîrmendên wekî Rosu û Hêgêl berevanî ji vê parvekirinê kirin. Wan jin bi rihliberek neeqlanî dihesibandin ku tenê ji bo biyava taybetî jêhatî bû û karîn û şiyana karkirinê di biyava giştî de ninin. Bo mînak Firoyd li ser vê baweriyê bû ku jin bi awayeke xwezayî lawaztir ji mêran û ji bo jiyaneke nizimtir hatiye afirandin, lê li rex van de jî hin kesên wekî **Voltêr**, **Can Îstwart Mîl**, **Dîdîdro**, **Marks** û **Îngils** jî hebûn ku lawazî û kêmasiyên jinan bi ne xwezayî û berhema rewşa jiyan, têkiliyên civakî û sîstema perwerdehiyê dizanîn. Di nava jinan de jî hebûn ku li ser mafê jinan û wekheviya jin û mêran bi deng hatin. Bo nimûne em dikarin qala kesên wekî **Madam Roland**, **Olêmp Dîgoj**, **Mad Miwazîl Dîgorna** û ji hemûyan girîngtir **Mêrî Woliston Kiraft** bikin.

Her çend ku jin ji bo mideheke zor ji aliyê sîstema mêr serdetiyê ve ketibûne warê taybetî û hatibûne perawêz xistin, lê piştî geşekirina sermayedariyê û hewcehiya vê sîstema aborî a hevrik pêwîstî bi karê zortir û erzantir û herweha kêmbûna dahata mêrên kedkar ji bo bijîva jiyanê û piştre hewcehiya şehrezayî û pispor kirina hêza karê pîşesaziyê, hêdî hêdî deriyê biyava giştî bi rûyê jinan de hate vekirin û derketine rojeva kar û xwendina profêşnal. Ji wê demê vir de pêvajoya bilind bûna asta hişyariya jinan û geşekirina bizava wan di xurtbûnê de ye.

Eva di cihê xwe de berhema pêşveçûna civaka Rojavayî û bi modernbûna amûr û kultura wan e, di halekê ku civaka me niha li qonaxa borînê de ye û hêj di warê kulturî de pêşketineke wiha bi dest nexistiye ku doza jinan tê de hatibe teorîzekirin û ne jî di warê pîşesazî de pêşketineke wisan kiriye ku têkiliyên civakî yên wê hatibin guhertin, lê di gel vê de jî modernîzasiyona bê modernîte bi terzek berfireh civaka Kurdî peçavtiye. Bi giştî asta çavnihêriya takê Kurd û bi taybet jinan, bilind bûye. Eva jî di çaxekê de ye ku wekî min qala wê kir edet û tîtal û kultura civakê bersivderê van çavnihêriyane nine. Bi vî awayî û li gor teoriya ''Gêr'' (bêpar bûna rêjeyî) newekhevî(nehevsengî) yek li navbera çavnhêriyên bihayî yên jina Kurd û rewşa derdorê çêbûye ku tûşî pirsgirêka civakî û derûnî kiriye. Bi wateyekê ku jina Kurd xwe jêhatî metodek ji jiyanê dizane ku derdora civakê jêre, diyarî neke. Lewra ez bawerim ku qonaxa borînê ji bo hemû takên Kurd bi taybetî bo jinan ku di bin zext û givaşên pitir yên civakî ne, qonaxeke dijwar û tejî arîşe ye û jê derbasbûn jî gelek dijwar û zehmat e.

Her ji ber vê sedemê ye ku em dibînin astê xwekuştina jinan û nemaze keçan di deverên Kurdakincî de zortirîn serhejmarî heye. Bi awayekê ku niha di Îranê de li sê parêzgehên Kurdakincî yên Îlam, Kirmaşan û Kurdistanê zortirîn serhejmariya xwekuştina jinan tê de diqewime. Eva jî vedigere bo nehevsengiya di navbera çavnihêriyên bihayî yên jinan û kartêkirina kultur û civaka derdora wan.

**Tu Rolê mêran di mana edet û toreyên kevn derbasbûna direng ji bo modernîtê çawa dinirxînî?**

Wekî min qala wê kir qonaxa bihurînê hemû takên civakê û bi giştî pêkhateya civakê tûşî kirîz, pirsgirêk û aloziyan dike, eva jî rast e ku mêran pê nexweşe ku sîstema mêr serdestiyê ku garantiya desthilata wî ye ji nav biçe, lewra çavnihêrî tê û hatiye kirin ku rasterast yan ne rasterast, bi hişyarî û bê hişyarî berevaniyê ji vê sîstema civakî bike. Eva jî xwest û berevaniyeke Paradoksîkal e. Wek çawa me got ku jina Kurd di navbera çavnihêriyên biha û jêhatî û şiyanên derdorê de tûşî nehevsengiyê bûye, herwiha mêr jî tûşî paradoksek di navbera xwesta nûxwazî û tirsa ji hiloşîna bingehên desthilata xwe hatiye. Lewma ez rolê zaf ji mêran di mana edet û kevneşopê de nerênî û negatîv dinirxînim. Mêrê Kurd bihêvî ye ku bi alav û amûrên kevn, xaniyek nû û teze biafirîne ku eva jî lojîkek nerast û şaş e. Encamek baş ji destpêkeke xirab çê nabe.

**Başe rolê jinan çi? wan çi bandorek li ser mana edet û daman de heye?**

Mixabin jinan bi xwe jî rolek nerênî hene, ji ber ku wan ev cure jiyane û ew yasa û qanûnên civakî pejirandine û kar pê dikin, lawazî û jarbûna xwe û pila du bûna xwe pejirandine û bi xwezaya jiyana xwe dizanin. Heta gilî û gaznideya wan jinan jî dikin ku edetên kevneşop dişkînin û dijî wan dam û edetan disekinin û berevaniyê ji mafê xwe dikin. Gelek car hebûye ku jin pitir ji mêran berevaniyê ji sîstema mêr serdariyê dikin û mîna rastiyek neguher dihesibînin. Ku vê jî sebebên perwerdehî û piskolojîk hene.

Bi raya min jina niha, jina rastîn nine, ji ber ku berhema perwerdehiya sîstema mêr serdestiyê ye, ew sîstema ku jinê jêhatî digel xwest û hêviyên xwe perwerde dike. Raste jina niha lawaz e, zêhniyet û eqlaniyeta wê li gor mêran jar û lawaztir e, lê eva xwezayî nine, ji ber ku di pêvajoyeke perwerdehiya dîrokî de wiha lê hatiye, berê û heta niha jî di hin cihan de jinan mafê xwendinê nebûne. Pareke zaf a perwerdehiyên mirov di nava civakê û di pêvajoya têkiliyên civakî de cî bi cî dibe. Li demekê di civaka me ya Kurdewariyê de niha jî pareke zaf ji jinan bi bilî çarçoveya malbatê tu cihekê nabînin, wate her di biyava taybetî de ne û nikarin tevlî warê giştî bibin û berengarî pirsgirêkên civakî bin ku di rastî de zêdetirîn bandor li ser perwerdebûna mirov heye. Ku wisan e tişteke xwezayî ye ku li gor mêran ku berdewam di nava pirsgirêkên siyasî û civakî de ne, geşekirineke kêmtir di warê raman û hizrî de bikin.

**Jin çawa dikarin taboya kevneşopiyan û astengiyên wê û sîstema mêrserdestiyê bişkênin(ji nav bibin)?**

Berî hemû tiştekê hewce ye dîtin û ramana jinan der barê xwe, karîn û şiyana wan, cî û rewşa niha di civakê de bihê guhertin, bawerî bi xwe û şiyana xwe hebin û bi tu terzekê rewayiyê bi desthilata mêr serdestiyê nedin, hewce ye ji nû ve xwe pênase bikin û vegerin ser cewher û kakila mirovî, di zirûfa alavbûn û koletiya mêran de derkevin û bibin bi mirovên serbest û eqlanî. Hewce ye bi pêk anîna yekîtî û sendîkayan di cehda hevrefî û bilind kirina asta hişyarî a hemû jinên civakê de bin. Herweha divêt bi xwendin û pişikdarîkirin di çalakiyên aborî de bingeha dirav û mana xwe ji bo berevanî kirin ji mafên xwe û xebat ji bo gihîştin bi xwestikên xwe qahîmtir û berfirehtir bikin. Jin heta ku di warê malî ve girêdayî mêran bin, nikarin dengê xwe bilind bikin û azadane xebata mafxwazane bimeşînin. Jin divêt netirsane derkevin nava astengî û pirsgirêkên civakî û siyasî ve. Xasmanî jinên Kurd ku ser bi neteweyeke mafxwarî û xebatkar in, hewce ye li hemberî çarenivîsa neteweya xwe bêalî nebin û çalakane pişikdariya şoreşê bikin û bidin eyanê ku di vî warî de jî ji mêran ne kêmtir in.

**Di dawiyê de te çi peyamek ji bo van jinan heye ku bi sedema xebat ji bo misogerbûna mafên xwe, ketine ber êrîşa kerb û kîn û nefreta civakê û mêrên xwe?**

Ez bi kurtî dibêjim ku tu xebatek, ew jî bo gihîştin bi armanceke wiha pîroz hêsan û bênirx nine, eva ku divêt bihê kirin, guherîna çandekê ye ku bi dirêjahiya dîrokê temen heye û di hemû aliyên jiyana civakî de reh û rîşala xwe dakutaye. Guherîna vê kulturê, guherîna pêkhate û sîstemekê lê dikeve ku berjewendiyên mêran anku mirovê serdest garantî dike. Lewra eva ne kareke hêsan e û tê çavnihêrîkirin ku bikeve ber êrîş û dijberiya xurt ya civak û mêran de, lewre xebatkarên rêya vê armancê yanî jin divêt bi berxwedanî û pêdagirbûneke berdewam û zêdetir cehd û tekoşîna ji bo bidestveanîna mafên xwe û guherîna rewş û zirûfê bikin û nehêlin ku ev asteng û zextane wan rastî têkçûnê bikin.

**Helbestvana Kurd Evîn Çîçek:**

# "DEMA JINA KURD BI ZANABÛN BIBE EVÎNÊ AZADÎ Û RIZGARIYA XWE, EW DÊ AZADIYA WELAT JÎ BISTÎNE"

Beşa 2 û dawî

**Hevpeyvîn: Azad Kurdî**



**Evîn çima helbestan dinivîsîne?**
Helbesta min dîroka rast tîne ber çavan, sûçdaran eşkere dike, hesabê dipirse, hişyar dike, şîretan dide, evîna azadiyê, rizgariyê, serxwebûnê di dil û mêjiyan de dide neqişkirin. Toximan dajo. Çandin e.

Mafên mirovan, mafên netewîbûnê di dest milletê min de ji aliyê diz û xwînxwarên modern ve hatine girtin, zeftkirin. Ez ku intellektûelek Kurd im, ezê çawa bê deng, bê helwest bisekinim? Çalakiyên min, tekoşîna min bi riya helbesta min jî dom dikin. Berxwedan, hîmê (bingeha) helbesta min e. Loma helbestên min li jinên din, yên xwedî welatên azad gelek (pir) cuda ne, naverok bi ferq in. Ji ber ku neteweya min bigêşî azadiyê ye, dixwaze wekî hemû neteweyên xwedî welat û serbixwe bijî, ez helbestên xwe mîna enextareka(kilîtike) derî didim şuxilandin (xebitandin). Nivîsandina helbestan ji tekoşîna azadiyê dûr û cuda nine. Wekî tillî û destan e. Hebûn û zanabûna min berheman diherikîne. Ez xwe mecbûr dibînim ku binivîsînim. Mîna çemekê hevokan biherikînim. Helbestvanê/a gelê bindest nikare wek kesên di nav rehetiyê de bi mijarên sivik demê biborîne. Li jiyana rast dûr, di xeyalên ser rastiyê re demê derbas bike û binivîsîne. Afirandin parçeyek ji jiyan û îradeya min e. Çiqas şexsî ye, weqes jî civatî ye.

Serkeftina herî biaqil û serkeftin ji bo me ew e ku em doça tekoşînê bernedin û şerên pêwîst bi hemû hacetên demokratîk pêk bînin. Loma pênûsê(qelemê) wekî çekekî ji zêr hember dagîrkerên nav me û derveyî me dixebitînim, didim şuxilandin. Xwe berpirsiyar, mecbûr dibînim ku bibim zimanê gelê ku her roj tê kuştin, peliqandin, di bin qedexeyan de dijî û bûye nîve mirî. Ji aliyeke din rehbera, qilavuza min danezana mafên mirovan e.

**Îro helbesta Kurdî li kîjan qonaxê de ye?**
Kurdistan li bin lingên Fars, Ereb, Osmanî û Turkan de bû. Hin Kurdan ji bo xelasbûna welat hewl nedan. Ji bo ol(dîn) û îdeolojiyên ku me dihelînin, xira dikin, ji ruhê Kurdbûnê dûr dikin, helbest nivîsandin. Îro jî dinivsînin. Di qeleman de axu-jehrê dilop dikir, dike.
Ji bo ku em bikarin îro binirxînin, pêwîst e xeletiyên demên borî rind (baş) bibînin, tespît bikin, bigirin ber çavan. Di dîroka wêjeya Kurd de M.B. Rudenko, Prof.Dr Q. Kurdo, Marif. Xeznedar, Îzzedîn Mistefa Resûl helbesta kilasîk ya Kurd girtine dest. Helbesta dema modern Cegerxwîn, Hejar, Osman Sebrî…..nivîsandin. Ji hêla pozîtîf û rind, helbestvanên me yên demên borî û yên vê esrê ji bo ku zimanê me yê qedexekirî neyê bîrkirin, wendakirin, were xebitandin û dewlemendkirin, bi berhemên xwe tekoşîn kirin. Bedel jî dan.

Hêla negatîv; helbestvanê/a Kurd ji bo ziman û wêjeya Ereb, Faris, Osmanî û Turkan bû hacet, amraz. Qelem (pênûs) û mêjiyê xwe ji wan re xebitand, wêjeyên biyanî xurt kir. Bi helbestên Kurdî jî bi nezanîn xizmeta dagîrkeriyê û dagîrkeran kirin.

Ehmedê Xanî ji îdeologê Îslamê re pesin, dûlge nivîsandine. E. Xanî bawermendekî paqij e. Rastî bi kuranî, zelalî nedîtiye û nenivîsandiye. Kurdên ku ola Hz. Mihemedê yê Erebistana Seûdî qebûl nekirin, bi hezeran hatin kuştin. Îro jî Kurd û neteweyên din tên kuştin. Tehamûl, tolerans, yên cuda qebûlkirin, di bawermendên wê olê de nine! Îro hemû dûgelên Ereb hember azadî xwestina Kurdan, azadbûna Kurdistanê bûne yek. Dagîrkeriya nejadperestane ya Fars, Ereb û Turkan bi rêya olê di nav milletê me de hêlîn vedaye, rîçik avêtine. Encam bindestiya Kurd û Kurdistanê ye. Îro jî Kurd bi sedan têne dardakirin, kuştin û hepis kirin.

Cegerxwîn helbestên mehtkirinê, pesindanê ji bo Stalîn nivîsandine. Ew rastî mirovan matmayî û, şaş dike. Ew helwest, nezîkbûyîn û pêşînedîtin helbesta Kurd dihelişîne, maf dike. Cegerxwîn, nedizanî Stalîn çi bi Kurdan kir? Kurd çawa kirin penaber û heta Sîbîryayê rêkirin, dan kuştin. Li bûyeran bê xeber bû. Xwînxwarekê wek egîdekê datîne pêşiya Kurdan û divêt ji wî re rêz û hurmetê bigirin!

Çi heyfe îro helbestvanê/a Kurd bi gelenperî ji yekîtiya ziman, ji serxwebûna siyasî dûr e. Wekî pêşketin û, pêşveçûyînên Başûrê Kurdistanê helbesta Kurd jî demekê derbas dike.

**Tu pêşveçûyîna helbesta Kurdî çawa dibînî?**
Welat, millet, çand, ziman hatiye qelişandin. Encam li holê ne. Hatin û pêşeroja helbesta Kurdî li yekbûyîna welat, netewe, ziman û siyaseta me re girêdayî ye.
Ya yekemîn ew e ku em hemû Kurd alfabeyekê bikar bînin, bixebitînin. Divêt li gor zanîna ziman alfabe were xebitandin. Xebatên zanistî dom bikin. Wekî mînak; Yûnan(Grek) bi sedsalan e ji alfabeya xwe re hez dikin. Li gor demê her pêşve dixin. Di alfabeya xwe ya yekemîn de li Fînîqeyiyan tîpên S K dz Z A B girtin û pêşve birin, karanîn rehet kirin. Wan beriya zayînê, di sedsala VI de jî ji bo ku alfabê rehet bi kar bînin, xebat dikirin. Beriya zayînê B.Z di 403'an de, "Archinos" qanûnan derdixîne, amade dike. Grekan (Yûnan) girekçeya nivîsî baqî, payidar kirin.

Em di sedsala 21'an da ne û alfabayeke me ya şirîkatî tune. Em alfaba **Erebî, Kirîlî** û **Latînî** dixebtînin, bikar tînin. Ji bo ku yekîtiya zaravayên zimanê me pêk bê, amade bikin ji ceribandinên gelê Bask dikarin feydeyê bibînin. Navbera 7 û 12 zaraveyên Baskiyan hene. Li 7 herêmên Baskiyan, 7 zarav tên xeberdayîn. Nifûsa wan bi giştî 2.900.000 in. Akademî ya Baskiyan di sala 1912'an de hatiye avakirin. Ya din jî li Marokê yekîtiya navbera zaravên, zimanên eşîran de çawa yekbûyîn, hevgirtin çêbûye û hevlên Berberiyan jî mirov dikare bigire ber çavan.

Ez dikarim bibêjim pêşeroja helbesta Kurdî, pêşeroja zimanê Kurdî ye. Divêt

pêwîst e çeperên ber yekbûyîn û, pêşveketina zimanê Kurdî bi bisporî, zanabûn werin rakirin. Heta ku ew pêk neyê, yekîtiya helbesta Kurdî jî pêk nayê, ser nakeve.

**Derheq helbesta kilasîk û ya nûjen de tu çi difikirî?**
Helbesta kilasîk a Kurdî di bin bandora şovenîzma çandî ya Ereb, Faris û Osmanî-Îslamî da bû. Helbestvanê/a Kurd ji Xwedê, ji Resûlan bi berhêvî bû, ji wan alîkarî dixwest. Pesna wan dida. Ew hewildanên vala, pûç bûn. Ne Xwedêyan, ne Resûlan, ne Olan, ne diayan Kurd û Kurdistan li bin lingan xelas nekirin. Tu feydeya wan negihîşt me. Hêviyan jî dem li me da borandin. Em zêdetir kirin nav tengesiyan. Olan agir berdan malên me. Neteweya me ji hev dûr kirin. Hestên netewî kuştin. Wekî jehrî-axu beden, mêjî teslîm girtin. Dagîrkeran Xwedê jî, Resûl jî bi rêya sinifa olî ji bo xwe dan xebitandin. Feyda ji wan dîtin. Me her tişt wenda kir. Faris, Osmanî û Ereban textên xwe yên şovenîstî xurt kirin. Rîçîk avêtin. Nejadperestiya ku bi navê Îslamê ket welatê me tu feyda neda me. Rihê zindîbûnê, vê dinê, xebatê, xwestinê, pêşveçûyînê kuşt. Her tişt bo biheşta paş mirinê bû. Kurdan dev ji vê dinê berdan, bi tirsa cehenemê teziyan. Pirs bîr kirin.

Kesên bawermend bi riya helbestan, bi nezanîn bûn dest û lingên şovenîzma olî ku çanda me maf kir. Hin mezin û rêvebirên Kurdan ne ji bo Kurdan, belkî ji bo serketina Îslama siyasî şer kirin. Selahadînê Eyûbî ji vî alî de mînaka herî balkêş e. Li sala 1514'an de, di şerê Çaldiranê de 700.000 zêde Kurd hatin kuştin. Îdrîs-î-Bîlîsî ji Yavuz Sultan Selîmê xwînxwer re jî namê dinivîsîne.

Nameya ku Îdrîs-î-Bîlîsî ji Yavuz Sultan Selîm re şandiye û pesna ku Cegerxwîn ji bo Stalîn nivîsandiye, ji hev cuda nînin. Du kesên ku bûne xwînxwerê milletê me û neteweyên din yên rexnê ne, yên teşhîrê ne, yên eşkere kirinê ne. Yên qedir û qîmetê nînin. Ez dikarim bibêjim helbesta kilasîk a Kurd bi hêla negatîv û metçî antî Kurd e. Ew aliyê negatîv.

Ji aliyê din ve, bi pozîtîfî helbesta Kurd a kilasîk dest daye serxwebûn û azadiya Kurdistanê. Li hember nejadperestiya Faris û Osmaniyan, yanî ji Îslamê jî derketiye. Ji wî alî ve tê qebûlkirin û parastin. Ez aliyê kevneperest rexne dikim. Pêwîst e zanayên wê mijarê bi objetîvî agahdariyê bidin civata me. Xeletîn û, jarbûnên helbestvanan bidin berçavan.

Çend caran Kurdên ne misilman bikom hatin kuştin! Îslama siyasî îro jî bo xendiqandin û dardakirina Kurdan sêpiyan amade dike. Tebaqa olî ji bo tevakirina Kurdan fetvan derdixîne. Di civatên nav neteweyên Îslamî de projeyên tevakirina Kurdan tên amade kirin û nîqaş kirin.

Helbestvan ji her alî ve çiqas zana be, weqes bi zanabûyîn, rehetî dinivsîne, şîrovan dike. Yên ku mêjî bi hêla îdeolojiyên ku dijminiya (neyartiya) me dikin, hatine dagîrkirin, xizmeta me nakin. Ji biyaniyan re dixebitin. Wêjeya wan dewlemend dikin. Qilavuzên rih wendakirî ne. Helbestvanên ku dora PEN'a Kurd civiyane û dicivin hêviyê didin min.

**Bi raya te ji bo helbestvanekê çi biqedr, qîmet û girîng e?**
Helbestvan xwedî dîtinekê ye, îdeolojiyekê ye. Di deriyekê de ji



cîhanê re temaşe dike. Nêzîkayiya wê/wî ya hunerê li gor komkirina zanîna xwe, bixwe ye. Nêzîkbûyîna şexsiyatan, kom û kufletê, civatê binyatê xwe sosyalîzasyona wî/ê de digire. Tûrikê pişta xwe de çi daye hev du, top kiriye, dikare wan bajo, bigêşîne. Çiqas tîhbûnê hîn bûbe, ewê ewqes zêde tûrikê xwe tejî bike. Ji toximên topkirî de berhemên baş(rind) derxîne. Mafê bijartinê jî dest te ye. Mirovê lêkolînê neke, dinê re eleqedar nebe, nexwîne, çavdêr nebe, nikare berhemên balkêş û nemir binivîsîne. Bi teybetî em Kurd nikarin demên xwe bi tiştên romantîk û sivik derbas bikin. Helbestvan ku xwedî rêza mafê mirovan, heyvanan, xwezayê bibe, dikare wekî mamostekî/ê civatê bi helbestên xwe perwerde bike. Zanîn helbestvan wek stêrkê bê alternatîv dike. Di ser derenciga herî bilind de herdem dide sekinandin. Ew, gildorî nabe, gêr nabe, nakeve. Ji bo helbestnavê/a Kurd tiştê herî girîng xelaskirina çand, netewe û welat e. Pêwîst e ew armanc bi evînek, hûmanîzmek cîhanî ve were xemilandin.

Di helbesta min a bi navê **Koçer**'ê de, min keçikek koçer girt dest. Jiyana wê ya civaknasî, rewşa Kurdistanê, rewşa jinê, zilma-nêzîkbûyîna dagîrkeran, şervanbûyîn û, tekoşîna wê neqiş, çînik kir. Koçer keça Paşayan nebû. Ji teknolojiyê dûr bû. Keçek ji rêzê de bû. Min bi jiyana wê ya teybet dem, herêm, derdor, bindestî û evîna wê ya azadiyê terîf kir. Min nedikarî wekî endamên wêjeya dîwanê bi vezna aruz gavên deveyên şêxan binivîsînim, pesna wan bidim. Karvanên wan wek mijar bigirim dest. Ji bo min keçikek koçer-şivan, tekoşîna wê, tirajediya ku wê dibirqand li ser her tiştî bû.

**Gelek kes behsa navarok û felsefa helbestê dikin. Hûn li helbestê da çi dibînin?**
Pêşda ez dikarim wisan bibêjim; hunera helbestê, hunera kelîman, lefzan e. Çalakiyeke ramanî ye. Helbest hunera serbest e. Helbestên min serbest in, xwezayî ne, estetîk in. Bang, hawar û awazî ye.

Bi dîtina Kant, hunera helbestê ji hêla hûtbûn û meleka fêmkirinê ve tê gerandin. Ew berî diguherîne. Hunera helbestê lîstika hestan e, aqil e. Bi baweriya min hunera helbestan lîstika aqil nine. Ez tê de şiûrê, ramanê bi hev re dibînim. Helbest bo min muzîkal e jî. Ji bo min statîka muzîkalê hîmê şekl û meteloka helbestê pêk tîne. Bi gotin û hevokên ku bi rehetî tên fêmkirin, tevnê çê dikim, diriçînim. Helbest ji bo min hem felsefe ye, hem tîmarkirina guh (guçik) û rih e. Ez wekî Aristoteles nafikrim. Helbest ne haceta texlîdê (jêgirtî) ye. Helbest û raman, fîlozof û helbestvan tenişta hev disekinin. Afirandina helbestê, ji aliyekê ve mijûlî (koşîn) ye. Ji Aliyê din ve hem ahenga dengî ye, hem jî xiyalkirin e. Ji bo min di hunera helbestê de hinav, derûn (şimşat-şikil) yekîtiyeke diyalektîk pêk tînin.

Pilaton li gor teoriya zanîna xwe dibêje; beytên ku ji Xwedêyan re tên xwendin, helbesta lîrîk in. Ew ji bo qencî xwestina mirovan diayên ku tên xwendin in. Ya duyemîn helbesta Logos ya hêja ye. Ew felsefî ye. Ew li cîhana hestên (hissî) wî alî (layê dî), cîhana Logos ên îdeal (mengî) e.

Helbesta min di nav cîhana ceribok da rewş, jiyan, cîhan û serborandinên Kurdên nêrbaran (şênber)in ku digire dest û wek mijar dişuxilîne, bi hevokan neqiş dike. Ne di şekil de, ne jî di naverokê de sir (pin-raz) tune. Bi meyan (hinav) û şekil rastiyên diyalektîk dibirqîne, didenîşan.

**Wekî hûn dizanin jina Kurd ne azad e. Seba azadiya jinê hûn çi difikirin? Ramana we çi ye?**
Ez girtiyê azadiyê me. Ji bo azadiya

xanima Kurd min tenê bi qelema(pênûsa) xwe xebat nekir. Tenê min di helbest û lêkolînan de ew negirt dest. Bi teoriyê ve dorpêç nemam. Di piratîkê de jî ez bûm çalakvan. Ew çalakvanî dom jî dike. Ez şoreşvan im, şervan im û di şerê azadiyê de cih digirim. Di nav govendê de me. Temaşevan(sêrker) nînim. Ne tenê jina Kurd, Kurdistan jî ne azad e. Bindestiya jinê, bindestiya dayîka Kurdistanê ye. Ez wekî navê xwe bawer im ku dema jina Kurd bi zanabûn bibe evînê azadî û rizgariya xwe, ew dê azadiya welat jî bistîne. Jina polîtîkvan, azadîhezker welatê xwe jî rizgar dike û welatek sosyal ava dike. Azadiya aborî azadî nîne. Îro jina Kurd li hemû nasnameyên xwe bêpar e. Ji wan dûr tê girtin. Di bin darê zilmê de ye. Mêrê Kurd girtiyê dagîrkeran e. Girtîbûna xwe bi zelalî, bi zanabûnê şîrove nake, nabîne, zilma ku dagîrker li ser wî diceribînin, ew jî li xanimên nêzîk yên xwe diceribîne. Bi xwe gorî ye, ew jî yên derdora xwe dike gorî. Dagîrker ji bo kesayetî tawakirinê, kudkirinê, kûr-kor kirinê mêrê Kurd wekî hacet dixebtînin. Didin şuxulandin. Mêrê hêsîr ku pişt hat tîmarkirin, hestên têrnebûyî hatin çeliqandin, xwe wek piling dibîne, dihesibîne. Dest li zilmê dike. Mîna hesinê ku agir pê tê girtin e. Ew mijar hemû hev re ya lêkolînan e. Çima em zilmê li hev dikin? Hev didêşînin? Binyata wan li ku tên? Tesîra, parê olan (dîn) çi ye? Zilm li jinan kirin, eva çanda Kurdan yan ya biyanî û dagîrkeran e û me jî ji wan girtiye?

Heta ku jina Kurd nebe rêvebirek zana, biryarvan-ker, otorîter, adil, mînaka pozîtîf edet û toreyên xirab nebijêre, ji civatê dûr neke, civatê perwerde neke, xelasbûn ji bo me xewn in. Guhertin di nav malan de dest pê dikin. Hêlîn mal in. Ya ku di nav hêlînê de mafan nedizanîn, neparêze, zarokan bi heqzanî, heqnasî mezinneke, ji bo azadiyê dikare çi bike? Heta ku jin zana nebe, rola xwe nelîze wek canê, bedena nîv kudbûyî çavikên civatê genî dibin, dirizin. Nexweşiyên, jarbûnên civatê paqij û baş(rind) nabin. Ew dê îcar birînan her biherike û me aciz bike(biqarîne).

Îro rejîmên olî jinê bi keviran didin kuştin. Wan, jin hêsîr girtine. Mêr, tebaqa-sinifa olî kitêbên **pîroz** wekî kîlît (enextar) dixebtînin û desthilatdariya xwe dimeşînin. Ew pirtûkên olî hêla mêran ve hatine nivîsandin. Mêrên kevneperest li gor ramanên xwe di nav wan de guhertin çê kirine. Jin kirine halîk wer ku, ew ji bedena xwe dûr dikeve, ditirse, sûçdar-gunehkar dibîne. Bi xwe ji xwe direve. Hezkirin nîne. Dîroka wê hatiye dagîrkirin. Ew rewşa xwe nabîne, ji dîroka jinan bêxeber e.

Pêwîst e jin dîroka olan pir rind (gelek baş) bikolîne û rûreşî, berrûbûn û sextekariya mêran derxîne holê. Di dîroka raborî de jin gunehkar( !) nine. Yên ku ew kirin gunehkar ji şoretiya, delaliya, estetîka bedenê, aqilê, jêhatîbûna, çelengiya, berhemdayîna wê ditirsin. Bi pirtûkên pîroz ew zaf girtin bin kontrolê, fîstanê hêsîrbûyînê lêkirin. Ew kîjan Xwedê ye ku zarokê ku di bedena dayîkê de peyda dibe, mezin dibe, tê xwedîkirin, dike dijmin û zilimkarê dayîkê? Em wan Xwedêyan qebûl nakin. Îro Xwedê artêş in, dewlet in. Ew jî aliyê mêran ve tên temsîlkirin! Loma di malan û civatê de aşitî, rastî, hevgirtin, hezkirin û yekitî tu nine.

Jina Kurd ji bo xelasbûyîna xwe û welatê xwe mecbûr e dawiya têkiliyên dagîrkeriyê bîne. Xwe nû bike. Ji bo ku di armancê de serbikeve, mecbûr e xwe birêxistin bike. Bê rêxistin ser nakeve. Nikare gav bavêje. Hevlên wê tên fetisandin. Bê hal dimîne.

Jin, di jiyanê de sembola parvakirinê, aşitiyê, azadiyê, xwêrxweziyê, nûbûnê, zêdebûyînê, nermiyê, hezkirinê, delaliyê ye. Ne serî berda, ne dest berda, girêdayî û ne jî xadim e. Ya serhildanan e. Hember rejîmên feodal, despotîk, dagîrker xwestvana azadiyê ye. Bi ruhekî şoreşgerî, tevgervana siyasî ye. Ew aliyên pozîtîv in. Jina ku hember zilma mêrên derdora xwe, civata kevnperest, dagîrkerên xwînxwer serî hilde (rake), netewa xwe wekî milletên pêşveçûyî digeşîne.

Jina Kurd ne mal û milk e, ne ya girtin û firotinê ye, ne jî hêsîra-girtiya edet û toreyên netewe û dînên-olên biyanî ye. Ew bi hest û hezkirina welat û neteweya xwe wekî stûna nav welatê me ye. Giranî, bar li ser milên (pîlên) wê ne. Çi heyf e ne bixwe, ne jî civat qedr û qîmeta wê nizane. Di bin çand û olên biyanî de bûye hîmê kevneperestiyê. Ji dîroka xwe bê xeber rewşa xirab diparêze.

Ji bo civateke adil, rojane û sosyal pêwîst e jin xwedî hemû mafên xwendinê, perwerdê be. Ji hin beşan dûr neyên girtin. Li gor xwestina, qabiliyet(fêris)a xwe bikare biryaran bide, bigire. Karê akademîk-zanînî tenê behra mêran nebe. Di parlamentoyan de, artêşê de, bi cudahiyên xwe ve şûna xwe bigire û biparêze.

Jinên ku karê malan dikin, bermal in, wek karker bi miaşê bixebitin. Mehanê bedelê keda xwe bigirin. Ewlekariya sosyal ji bo wan jî hebe. Di nexweşî û pîrbûnê de bê ewlekarî nemînin. Ji aliyê aboriyê de mihtacî derdoran, mirovên xwe nebin. Azadiya aborî mafê wane jî. Ew maf bi qanûnan were tespît kirin. Divêt civat di vî alî de jî were perwerde kirin. Jin li jiyana sosyal dûr neyê girtin. Jin, tişt-pil û pirtî nîne. Ne xizmetkara malê, ne ya karxanan, ne jî ya olan e. Jina Kurd ne girtiyê dagîrkeran, ne yê mêran, ne yê olan û tebaqa olî, ne jî ya dewletan e.

Polîgamiya ku (zêde bi jinan re zewicandin) bi edet û toreyên Eraban, bi çanda olî ketiye nav me heta ku ew çand neyê qedexekirin û di nav malan de aşitî pêk nayê û psîkolojiya jina Kurd baş nabe. Jin hacetek cisnî nîne. Sedemê çanda olî mêr wê wek hacetekêbikar tîne. Wek mirov nagire dest û nêzîk nabe. Pêwîst e jin fêr bibe ku can, canê wê ye, beden, bedena wê ye. Tenê bi xwe dikare di heqê bedena xwe de biryaran bigire, bide. Ew ne mecbûr e bi her alî ve xizmeta mêrê zor, xirab, zilimkar bike. Mafê mêr yê pelişandinê- zîverkirinê jî nîne. Zilma cisnî, fîzîkî, aborî, psîkolojîk nayê qebûlkirin. Ew kîtabên ***"pîroz"*** ku wan zilman qebûl dikin bila ji me û civaka me dûr bin.

Ez wek helbestvanek xelasbûn û azadiya jinê, bi rizgarîbûna civata mê re yek digirim dest. Jin û welatekî rizgar, azad wek dayîka ducanî (avis) û zaroka di zik de bi hev re girêdayî ne. Jina ku ji her alî ve azad be, welatê xwe digeşîne derencîga (merdivana) azadiyê. Ew jin li rêvebiriya welatê xwe de kursiyan bi mêrên dilxwez re bizanebûn parve dike. Xwedî biryar, wekî kesayetiyeke zana û xurt, welatê pîroz ji her hêlê ve dike dewletek sosyal. Ji nexirabûnê re, kevnperestiyê re, bindestiyê re, hêsîrtiya mêran, civatê, dagîrkeran re, başiyê re, serkeftinê re, aşitiyê re, xelasbûnê re dibe hîm. Zarokên welatparêz, modern, heqnas, heqzan digeşîne. Nabe xadima helişandinê, avakirinê re mînakiyê wek armanc diparêze.

**Ji bo pêşerojê hûn xwediyê kîjan armancan, pilan û projeyan in?**

Heta niha sê pirtûkên min yên helbestan hatine çapkirin. Min gelek jî nivîsandine û heta niha nedane çapkirin. Ez bi zaravayê Kurmancî dinivîsînim. 4 pirtûkên lêkolînan yên min hatin çapkirin. Yek li ber çapkirinê ye. Hinên din hene, ezê wan jî bidim çapkirin. Ji wan yek niha tê wergerandin. Ewê bi Fransizî were çapkirin. "Hereketa Qoçgîriyê ya serxwebûna netewî 1921", çapa duyemîn amade ye. Ewê were çapkirin. Ezê her binivsînim. Sekinandin, westan nabe. Wekî jin barê min ji yê mêran girantir e. Ez xwe berpirsiyarê rizgarkirina jinê, civatê, welat dibînim.

# MAF Û MIROV

**ADAR JIYAN**
adarjiyan@mynet.com

Tiştên ku ji bo tevger û jiyana mirov wekî fêhel, helal û rewa têne dîtin, hemû wekî maf têne binavkirin. Maf, ji bo domandina jiyana her mirovî/ê wekî mercekî bingehîn tê zanîn û pejiranndin. Ji bo wê, maf û mirov bi hevdû hatine kelijandin. Ango tu car ne maf bê mirov dibe û ne jî mirov bê maf dibe.

Nîjad, reng, ol, temen, zayend û zimanê wî/wê çi dibe bila bibe her mirov ji bo hezkirin, rêzgirtin û pêşvebirina çand, huner û zimanê xwe, xwedî maf e. Mafê her kesî/ê heye ku hest û ramana xwe derbibîre û pêşve bibe.

Her mirov, şayanî rûmet, şeref, hesyet, fezîlet, dilpakî, hêminî rêzdarî û hezkirinê ye. Ji do heta îro, ligel ku mafdarî û rûmetdariya mirov bûye mijara gelek nîqaşên dadî, felsefî û ramyarî jî, hêj mafên mirovan ên rewa û bêrî têne manîkirin, astengkirin û binpêkirin.

Di xala yekemîn a Danezana Mafê Mirovan de tê gotin ku “Her mirov ji hêla rûmet û mafê xwe ve xwedî rûmet, azad û yeksan tê dinê. Her mirov hişmend û xwedî wijdan e. Û divê her mirov bi bîr û baweriyên xwişk û biratiyê tev bigere.”

Xalên ku di Danezana Mafê Mirovan de hatine diyarkirin, hemû bi hinceta ku her mirov û civak bi hemû xwebûna xwe bikaribe xwe biparêze, hatine navîşkirin. Her wiha ew danezan ji hêla gelek dûgelên dinê ve hatiye pejirandin. Belê mixabin danezan tevlî gelek xalên xwe, pêşî jî ji hêla van dûgelên ku ev danezan pejirandine, tên binpêkirin û mandelekirin.Û tu kes ji wan guh nade peymanên navneteweyî û mafên mirovan ên fêhel û rewa. Hemû hêz û dûgelên desthilatdar, ji mafê mirovan bêtir di berjewendiyên xwe yên rojanê yên bêxêr û bêkêr de difikirin. Şer û pevçûnên bênavber, talan, kuştin û dagirkirinên darê dinê, lêkdanên domdar û bêdeman ên navneteweyî hemû bi destê van hêzên desthilatdar pêk tên. Sedem û egera neyîniyên vê dinê hemû jî ev şer û pevşûnên bêsûd û bêsiûd in. Û tu car tu havil û fêdeya van şer û lêkdanên rûxîner li mirovahiyê nebû ye.

Ligel ku tu şer û xerabiyên dinê ji hêla mirovên bindest û bêrî pêk nehatine jî, xisar û rûxanên van şer û pevçûnan her gav bi ser serê zêç, zarok û jinên bêguneh û bêrî de dibarin. Her sal, roja 10’ê Berfanbarê wekî



Roja Mafê Mirovan tê pîrozkirin. Xasma jî ev roja pîroz, pirê caran ji hêla dagîrker û desthilatdarên dinê ve tê bibîrxistin û bilêvkirin. Ji aliyekî ve xwîna mirovantê rijandin, xak û welatê wan tê dagirkirin, mal û milkên wan tên talankirin ji aliyê din ve jî qesta parastina mafê mirovan tê kirin. Tu mirovên xwedîhiş û xwedîwijdan nikare li hemberî van nakokî û neliheviyên sosret bêdeng bimîne. Tu kesên hestyar û pejnkar nikare vê durûtî û bextreşiyê biserifîne. Ya ecêbtir ew e ku tu rûhber û giyanwerên dinê jî nikarin xwe li hemberî vê stembariya darê dinê bigire.

Tenê bi bîranîn û bibîrxistina soz û peymanên girîng, bi bilêvikirna danezanên berbiçav û girgîn, bi rêzkirina xal û bendên manîdar an jî bi serifandina gotin û peyvên şahîk û şîrîn re, tu car mafê mirovan nayê sepandin. Û tenê bi dirûşm û sirûdên gewzîn re tu car rûmeta mirovan nayê parastin. Yanê gotin zêde ne muhîm e. Ya muhîm ew e ku ev xal û bendên ku li ser rûkê kaxizê hatine nivîsandin derbasî karvaniya jiyanê bibin û jidil û can werin parastin û sepandin. Ji oldar û bawermendên êzdî, misilman, cihû (mûsawî), fileh(îsawî), bigirin heta olperestên tirk, kurd, ereb, faris; ji mirovhezên navneteweyîparêz bigirin heta şoreşger û niştimanperwerên rûs, alman, îngîlîz û freng; ji bindest û bintûteyên welatan yên bêzar û bêwar bigirin heta hêzên serwer û serdest ên dinê… hemû jî Roja Mafê Mirovan bi coş û peroş pîroz dikin(xwedêgiravî). Û tu ji wan jî li hemberî xal û bendên vê danezanê dernakeve. Belê di piratîka jiyanê de, zêde tu kes li vê danezanê xwedî dernakeve. Jixwe nakokiya herî mezin jî ev e.

Li ser rûyê dinê tu tişt nikare bi qasî mirov payedar û rûmetdar bibe. Belê tu tişt jî nikare bi qasî mirov, mirovahiyê bênirx û bêrûmet bibe. Heke bi rastî parastina mafê mirovan hebûya, tenê rojek bûya jî dê şer û pevçûnên bênavber bihata rawestandin û tenê dilopek xwîn nedihate rijandin.

## Peymannameya Cîhanî ya Mafên Zarokan

**Beşa 3**

***Zarokên kêm endam(siqet)***

23) Zarokên kêmendam(siqet) bona hebûna jiyaneke baş, hewceyî perwerde û hînkirineke taybet in.

***Xizmetên saxlemiyê***

24) Mafê zarokan e ku bibin xwediyê radeya herî bilind ya saxlemî û xizmetên nojdariyê. Dewlet divêt baleke taybetî bidin xurtkirin, parastin û hînkirinên giştî yên saxlemiyê.

***Lêkolîna li ser rewşa zarok***

25) Rewşa zarokên ku ji aliyê dewletê ve bi kesan yan jî bi malbatan tê sipartin, divêt bi serûberî bê nirxandin.

***Dabînkirina civakî***

26) Her zarokekê mafê vê çendê heye ku ji dabînkirina civakî bi taybetî bîmeya civakî bêpar nebe.

***Radeya jiyanê***

27) Her zarokekê mafê jiyaneke wiha heye ku di warê cendekî, zehnî, hundirî û civakî de geşe bike.

***Hînkirin û perwerdehî***

28) Mafê her zarokekê ye ku ji hînkirin û perwerdehî bêpar nebin û dewlet divêt îmkana perwerdehî destpêkî ya belaş û bi zorî bo hemû yan pêk bîne.

***Hînkirina buhagiraniyan***

29) Armanc ji hînkirin û perwerehî divêt geşekirina kesayetiyê û şiyanên zarokan bi awayê herî baş be, û zarokan bo jiyaneke çalak di civakê de berhev bike.

***Zarokên kêmaniyên neteweyî û mesebî***

30) Zarokên kêmaniyên neteweyî û mesebî mafê vê çendê hene ku bibin xwediyê çanda xwe, karên mesebî ên xwe bicî bînin û bi zimanê xwe biaxivin.

***Lîstik û çalakiyên çandî***

31) Zarokan mafê leyîstin, geryan û beşdarî di çalakiyên çandî û hunerî de hene.

***Karê zarokan***

32) Zarok divêt di hember her karekê de ku gefê li geşekirin û saxlemiya wî diket, bihê parastin. Dewlet divêt aliyê kêm temenê kar û rewşa karê zarokan diyarî bikin.

***Mewada muxedir (sirker)***

33) Zarok divêt li hember mifahwergirtin ji mewada muxedir(sirker) û beşdarî di çêkirin û belavkirina wê de bihên parastin.

***Mifahwergirtina xirab a zayendî***

34) Dewlet divêt zarokan li hember her cure mifahwergirtineke xirab a zayendî de biparêze.

***Kirîn û firotina zarokan***

35) Dewlet divêt bona pêşgiriya ji kirîn û firotin û revandina zarokan kiriyarên hewce encam bidin.

***Wergeran: Şehab Xalidî***

agiri

**Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî**
**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne**

**http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/kurmanci. php**

**Navnîşana derveyî welat:** AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE
**E - Mail:**
**rojnama_agiri@yahoo.com**
**agiri2003@hotmail.com**



# Ferhengeke nenaskirî ya Kurdî

**Serbest**

Di wan çend salên dawiyê de piştî çêbûna tevger, bizav û saziyên Kurdî di her çar



perçeyên Kurdistanê de û bi taybet piştî serkevtina serhildanên Başurê Kurdistanê û berfirehbûna navendên rewşebîriyê û dezgehên ragihandin û mîdyayên Kurdî, Pirtûkxaneya Kurdî jî karî ye ku di hemû warên zanistî, rewşenbîrî û çandî de astên herî bilind û berçav bidestve bîne. Her çend ev yeka di hember kêmasî û hejariya pêşîn ku di ser pirtûkxaneya Kurdî de hatibû sepandin, tiştekî hindik û nexuya tê ber çav, lê belê eva ku di wê derheqê de aşkira ye, eva ye ku di dirêjahiya dîrokê de pirtûkxaneya Kurdî wekî wan çend salên wê dawiyê nebûbû xwedî berhem û weşan.

Yek ji wan berhemên herî dewlemend ku di wan çend salan de pêşkeşî pirtûkxaneya kurdî hatiye kirin, Ferhengoka **"Hewtewane"** ye, di warê wergeran û ziman de ku mixabin ew pirtûka li gorî dewlemend bûna xwe wekî pêwîst di nav xelkê me de nehatiye naskirin û cihê xwe negirtiye.

Ferhenga han ku navê stêrka Heftewane lê hatiye danîn, bi hênceta wê yekê ye ku bi heft şêweyan di warê ziman û wergeranê de behre lê tê wergirtin.

Di yekemîn lênihêrînê de asta dilsojî, xizmetkarî û armanca nivîskar seba hûnana wê pirtûkê eyan dibe.

Hêjayî gotinê ye ku ew ferhenga li sala 2000'an de, bo yekemîn car di çar beş û 794 rûpelan de hatiye amade kirin û piştre çap bûye. Bo wergeran û zanebûn bi ser sê zimanên Kurdî, Farsî û Îngilîzî, ku bi heft şêweyên jêr bi kar tê:

**Kurdî - Kurdî** **Farsî - Farsî**
**Kurdî - Farsî** **Farsî - Kurdî** **Îngilîzî - Îngilîzî**
**Kurdî - Îngilîzî** **Farsî - Îngilîzî**

Nivîskarê bi nav û bang û xebatkar birêz **Fetah Kaviyan** bi berhevkirin û hûnana wê ferhegê ximetekî mezin û hêjayî pesnê bi çand û zimanê Kurdî kirî ye. Pir cihê şanazî û serbilindiyê ye ku nivîskarên din yên xwedî şiyan bi vî awayî erkê xwe di hember çand û zimanê xwe bi serbilindî bicî bînin.

Nivîskarê ferhenga "Hewtewane " bi çêkirina xişteyekê, karê xwendewan hêsan kiriye ku wateya peyv û biwêjan bi Kurdî, Farsî û Îngilîzî, bi hêsanî peyda bike û feydeyê jê bistîne.

# Dr. Qasimlo banga Aştî û Azadiyê

Vê hefteyê pirtûkxaneya Kurdî bû xwediyê pirtûkeke nû. Pirtûka **Dr. Qasimlo Banga Aştî û Azadiyê**, berhevkirina nivîskar û şorişvanê Kurd, birêz **Şehab Xalidî** ye ku hate çap û belav kirin.

Ev pirtûka nû ji dozdeh beşan pêk hatiye. Di destpêka pirtûkê pêşgotin û destpêkek hatiye nivîsîn. Ji bilî **12** beşên bingehîn yên vê pirtûkê çend helbest û albûmeke wêneyên şehîdê nemir **Dr.Qasimlo** di dawiya pirtûkê hatine rêz kirin.




Birêz Şehab Xalidî hebek ji pirtûka **Dr. Qasimlo Banga Aştî û Azadiyê** diyarî pirtûkxaneya Agirî kiriye. Em wî sipas dikin, pîrozbahiyên germ û destxweşiyê dibêjin vî ciwanê çalak û li benda berhem û xebatên wî yên dinê ne.

# Pirtûka: GOTAR Û WERGERAN bi Kurdî derket

Pirtûkxaneya Kurdî vê mehê pirtûkeke nû di warê zanista wergeranê li hembêz girt û pê dewlemend bû. Pirtûka nû **Gotar û Wergeran** ji aliyê wergêr û nivîskarê Kurd **Kosar Fetahî** ji zimanê Farsî bo ser Kurdî hatiye wergerandin.

Di vê pirtûkê de hewl hatiye dayîn ku bas ji babeteke nû bike û peywendiya navbera pirsgirêkên wergeranê û vê mijarê şirove bihê kirin.

Mijara Gotar û Wergerandin di nav wêjeya Kurdî de gelek nû û taze ye û divê derbarê de kêm berhem û nivîsar hatine çapkirin. Xwendina vê pirtûka dewlemend cuda ji vê çendê ku ji xwendekarên warê zimanzanîn û wergeranê re girîng e, belkî ji bo wan kesan jî girîng e ku nirx û balê didin wergeranê û her wiha ji wan wergêrên ku bi kiriyarkarê




wergeranê dikin.

Em pîrozbahiyê ji kekê Kosar Fetahî re dibêjin û spas û pêzanîna xwe pêşkêşî wî dikin bona vî karê mezin û hêja û xizmet bi çand, ziman û wêjeya Kurdî.